Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

# AGIRÎ

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (229) 05-05-2014 Buha (150) Tûmen





## "PKK û dewleta Turk naxwazin şer dest pê bike "

Mihemed Salih Qadirî: •••» 5

## Mamostayên xwedî roj, lê bê maf

3 «•••



# Nîgeraniya Amerîkayê ji Mûşekên Balistîk

**Berpirsyarên Amerîkayî bas ji hewcehiya zext û givaşan bo ser rejîmê dikin, da ku bikarin pêşiya serhişkiyên rejîma Îranê bigrin.**

Li gorî rapora "Cirozalim Post", senator Rabirt Minindiz, serokê Komîteya Pêwendiyên Derve ên Senaya Amerîkayê, bi tundî ew pêvajoya gotûbêjên navikî bi rejîma Îranê re rexne kir, û daxwazkarê zextên zêdetir li ser ejîmê bû. Wî ragehand ku tundtirkirina gemaroyên aborî, dikare pêşiya du vebijêrkên wekî "qebûlkirina hikûmeteke Îslamî ya navikî" û "pevçûna leşkerî" bigre. Wî got nabe em tenê bîr ji lihevkirinê bikin, dibe ew lihevkirin di cihê xwe de be, lê dewleta Obama giringiyê nade vê yekê.

Berdevkê Wezareta Parastina Amerîkayê jî, ragehand ku em tu nîşaneyekê ji ragirtina pêşkevtina programa mûşekên balistîk nabînin. Her di vê derheqê de, berpirsyarê Komîteya têkiliyên Derve ên Kongrêsê jî, ragehand ku armanca dawî ya gotûbêjên navikî jinavbirina şiyana mûşekên balistîk ên Îranê ye. Wezareta Karûbarên Derve a Amerîka jî di rapora xwe ya salane de ragehandiye ku Îran piştevaniya Elqaîde û girûpên ser bi Elqaîdeyê dike, ku ew yek gefek micid e bo ser Amerîka û hevalbendên wê.






Ehmed Bîlal

## "Dema RDKÎ nûçeya şehîdkirina Dr. Qasimlo bilav kir, çaydanê çayê ji destê xwediyê malê de kete xwar"

8 «•••

•••» 4

## 500'mîn Salvegera Tifaqa Kurd û Osmaniyan



## Sergotar

### Beşar serkomarê alîgiran



**Şehab Xalidî**

Di roj û mehên despêkê yên şoreşa xelkê Sûriyê de, gellek kesan êdî fatiha Beşar xwendibûn, û sinaryoyên curbicur piştî nemana Beşar di mejiyên xwe de, bi cih kiribûn, û bi tu awayî bawer nedikirin ku ew bi piştgiriya rejîma Îranê, ew qas ber xwe bide, ku piştî sê salan şoreşa xelkê Sûriyê cardin bas ji xwe berbijarkirina bo serkomariyê bike.

Renge dijberan hekî zanîban ew qas zehmet e ku Beşar li ser kar vêde bibin, dest bi serhildanek bi vî rengî nekiriban.

Niha êdî Beşar xwe bo posta serkmariyê berbijar kiriye, û kesê guman têde nine ku wê sedîsed dengên kesên sedîsed bawermend bi deshilata xwe! bo serkomariyê bi dest bîne, jiber ku wî hewcehî bi dengê dijber û neyarên xwe nine, û ew der ne Amerîka û Ewropa û ...hwd ye ku alîgir û dijber hemû di dengdanê de beşdar bin!.

Ji aliyekî din ve pirseke giring ku hêla yekalî nebûye, ew e ku ew dixwazin li Qamişlo û Hesekê jî sindûqên dengdanê danên, lê PYD ragehandiye ku herçend wan biryara dawiyê di vê derheqê de nedaye, lê zehmet e ku ew rê bidn ku hilbijartin li cihên deshilatdariya wan de birêve here.

Lê her çi be, ew hilbijartin, hilbijartineke ku zêdetir propagende ye bo vê ku deshilata Sûriyê bi piştgiriya Îranê, ne tenê bi hêz bûye, belkû gellek caran herêmên li jêr destê dijberan de jî ji wan distîne, û niha jî Beşar ew qa ji mana xwe xatircem e ku xwe bo serkomariya Sûriyê berbijar dike.

Bêguman hewce ye ku civaka cîhanî, yekgirtî û yekhelwest li dijî Îranê û piştgiriya wan ji Beşar helwestên tund bigre, û nehêlan ku rejîma Îranê, ew qas bi rehetî bi pere û dahata xelkê hejar ê welatê xwe, deshilateke xwînmij wekî deshilata Sûriyê ji tirsa herifînê rizgar bike.

# PDKÎ û KCK li hev civiyan

**Kurdistanmedia: Di hevdîtina du şandên Partiya Demokrat a Kurdistna Îranê û Koma Civaka Kurdistanê de basek derheq guhertinên Rojhelata Navîn yên wê dawiyê û pêwendiyên du aliyan hate kirin.**



Nûçegehaniya Kurdistanmediayê ragehand ku roja Şemiyê 26'ê Nîsan a 2014'an, şandeke Partiya Demokrat a Kurdistna Îranê bi serperestiya rêzdar Mistefa Hicrî Sekreterê giştî, seredana Koma Civakên Kurdistanê li Qendîlê kirin û ji aliyê birêz Cemîl Bayîk hevserokê vê partiyê ve hatin pêşwazîkirin.

Di civîna navbera herdu aliyan de, guherînkariyên vê dawiyê ên Rojhilata navîn û herweha peywendiyên navbera herdu aliyên PDKÎ û KCK'ê, mijarên herî sereke bûn ku ketin ber bas û niqaşê.

Di despêkê de rêzdar Mistefa Hicrî ji aliyekê ve lidor berdewamiya pêvajoya aştiya di navbera KCK'ê û dewleta Turkiyê û pêngavên Turkiyê bo azadiya girtiyên siyasî yên KCK'ê û, herweha pîrozbahiya encmên hilbijartinên bajêrvaniyan ku ji rêya BDP'ê ve li Kurdistna Bakûr bi dest anî bûn, keyfxweşiya xwe nîşan da û ji aliyê din ve, nîgeraniya PDKÎ derheq vê yekê nîşan da ku heya niha dewleta Turkiyê tu pêngavek erênî derheq mafên Kurdan di pêvajoya piroseya aşîtiyê de neavêtiye û tu pirogramek siyasî bona çareseriya doza Kurd di vî welatî de pêşkeş nekiriye.

Hicrî di vê hevdîtinê de dirêjedana piroseya aşîtiyê bi kareke erênî û baş dazanîn û ragehand ku bandora berdewambûna vê piroseyê dibe sebeba rêgirtin ji ducarîbûna şer di Turkiyê de. Sekreterê Giştî yê PDKÎ di vê hevdîtinê de li ser parastina destkevtên gelê Kurd li her çar parên Kurdistanê serbarê hebûna kêmasiyên curbicur, pêdegirî kir.

Hicrî yekgirtin û vekheviya hêz û aliyên curbicur ên Kurdistanê, li ser bingeha berjewendiyêm neteweyî weke sitratejiya hevper a tev aliyan, bona rêgirtin ji wan nîgeranî û tirsan ku ji aliyê dujmin û neyaran ve bo gelê Kurd tên çêkirin, bi hewce zanî. Bi taybet li Kurdistna Sûriyê de serbarê nakokiyên di navbera hêz û aliyên siyasî ên Kurd de, vegeryana bo lihevhatina Hewlêrê ku bona cardin jidestnedana deverên Kurdî û herweha çareseriya asteng û arîşeyên ser rêya xebata gelê Kurd hatiye wajûkirin, bi hewcehiyek îroyîn da xuyandin.

Derheq bi pêwendiyên navbera KCK'ê û PDKÎ de, Hicrî bi awayek eşkere rexne û nêrînên PDKÎ xistin ber bas û daxwaza domandina pêwendiyên dostane yên du alî liser bingeha hurmet girtina ji hewdu û Çareserkirina asteng û arîşeyeyan ji rêya gotubêj û danûstanan kir.

Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistna îranê di parek din a axavtinên xwe de ragehand ku Komara Îslamî serbarê hebûna van hemû kirîzên siyasî, civakî û abûrî, hêj bi awayek berfireh tepesekirina xelkê û bidarvekirina girtiyên siyasî ji aliyê rejîma Îslamî ya Îranê ve didome û her di wê pêwendiyê de nigeraniya xwe ji pîlanên rejîmê li navxwe û bi dijî xelkê Kurd û herweha destêwerdanên vê rejîmê di karûbarên parên din ên Kurdistanê nîşanda. Piştre birêz Cemîl Bayak hevserokê Koma Civakên Kurdistanê, serbarê derbirîna keyfxweşiya xwe li hember serdana heyeta PDKÎ liser hestyariya guherînên Rojhelata Navîn û hewlên Îran û Turkiyê bo teşene û nifûza xwe di vê deverê de, hevcehiya hişyarbûna hêz û aliyên siyasî yên Kurdistanê li hember van pîlananan xist ber basê ku ji aliyê dewletên Îranê û Turkiyê ve li dijî gelê Kurd birêve diçin û, herweha pêdagirî kir liser piştvaniya rejîma Îranê ji Beşar Esed û piîştevaniya dewleta Turkiyê jî ji girupên Îslamî.

Bayak hewcehiya çêkirina sitratejiyek hevpar û hevdeng li Kurdistanê bi erkek îroyîn da zanîn da ku bikarin li hember wan tevger û guherînkariyê ku di rojeva herêm de ne tevbigerin û bersivder bin. Bi çêkirina sitratejiyek weha jî, tev aliyên pêwendîdar ên herêmî û navdewletî jî, wê hisabek taybet li ser giranî û pêgeha Kurd di deverê de bikin.

Bayak di pişka din a gotinên xwe de, li ser berdewamiya pêvajoya aşîtiyê tevî Turkiyê pêdegirî kir û herweha lid or vê yekê rexne ji dewleta Turkiyê girt ku, heya niha tu pêngavek micid bona bingehîn kirina yasayî ya gotûbêjan nehavêt ye.

Di dawiyê de Cemîl Bayak li ser berdewamiya pêwendiyên navbera Partiya Demokrat a Kurdistna Îranê û Koma Civakê Kurdistanê û herweha bandora PDKÎ bo çareseriya arîşeyên navbera aliyên siyasî û çêkirina derfetên hevkarî û yegirtinêm siyasî pêdegirî kir û daxwa vê yekê kir ku, hevdîtinên di navbera PDKÎ û KCK berdewam bin.



# Mamostayên xwedî roj, lê bê maf

Ebdulah Hicab



Meşa nerazîbûnê ya Mamostayan di Îranê de

Komara Îslamî roja 2'ê gulan (12 banemer) weke roja mamostayan bi nav kiriye, ji ber ku di wê rojê de Murteza Muteherî, yek ji teorisyenên rêjîmê bi destê koma ku xwe bi navê grûpa Furqan bi nav dikir hate kuştin.

Binavkirina wê rojê bi navê roja mamostayan di halekê de ye ku rêjîmê bi xwe di sala 1994'an de, deng dabû biryarek UNESCO'yê ku roja 5'ê cotmehê (oktoberê) weke roja mamostayan bi nav kiribû.

Binavkirina rojek bi navê roja mamostayan ku di gel roja navneteweyî ya mamostayan hev nagire, di bingeha xwe de ne karek zêde ecêb e, ji ber ku gellek welatên cîhanê li gor pîvan û pêwîstiyên xwe, rojên cuda weke roja mamosta bi nav dikin.

Heya vir, ne tiştek zêde ciyê pirs an rexnê ye ku Komara Îslamî li gor pîvan û pilanên xwe, rojek cuda ji roja cîhanî ji bo wê boneyê diyarî kiriye. Lê ya ku Komara Îslamî ji pîvan û nirxên cîhanî ji bo rêzgirtin ji wê rojê cuda dike, nêzîkbûn û dîtina rêjîmê li ser mamosta, pêgeh û rola mamosta û erk û derfetên mamosta di civak, sîstema perwerde û di xwendingehan de ye.

Komara Îslamîm, beriya ku derfetê bide mamostayan ku li gor pîvanên zanistî yên perwerdeyê erka xwe ya mamostatiyê bi cî bînin, hewl dide ku mamostayan bike emraz ji bo pêşvebirina pilanên xwe yên paşvero di civakê de.

Sîstema perwerde ya Komara Îslamî, bi tu awayî giringiyê nade pîvanên perwerdeya zanistî. Berevajî, bi riya sîstema xwe ya perwerdê hewl dide ku civakê girtî û di tarîtiyê de bihêle.

Ji bo pêşvebirina wê nêrînê jî, bi her awayî mamostayan dixe bin zextê heya ku ji wê pilanê re, rê xweş bikin.

Mamosta di çarçoveya rêjîma Komara Îslamî de kesê herî bê maf e. Ji ber ku mamostayên welat nikarin xwe bi sazî û rêkxistin bikin, nikarin bikevin yekîtiyên serbixwe, nikarin li derveyî çarçoveya teng ku ji bo wan hatiye danîn bibêjin, bipirsin an ku tevbigerin.

Sîstema perwerde ya Komara Îslamî rê nade mamostayan ku xwendekarên xwe bi hizrek serbest û lêger bar bîne.

Ji ber ku sînorê tenge ku ji mamostayan re hatiye danîn, tu derfetê nade wan ji peyvên di nava pirtûkên xwendinê de zêdetir, ku ji aliyê teorîsiyen û stratêjên siyasî û îdeolojîk ên rêjîmê ve hatine amadekirin, peyvek din fêrî xwendevanan bikin.

Rêjîma Îranê bi tu awayî mamostayan li hember zext û zora dem û dezgehên ewlekarî û kontrolê naparêze û ewlekariya wan ya civakî misoger nake.

Ji aliyekê ve tirsa ji dezgehên deshelatê, ji aliyê din ve dahata kêm û sînordar, arîşeyên jiyanê û destengiyê mamostayan neçar dike ku ji perwerde û karê mamostatiyê pitir, di hizra ewlekariya jiyana xwe û malbatên xwe de bin.

Di rewşek wisa de asayî ye ku mijara perwerde û erka fêrkariyê ji rojeva mamostayan derkeve, û li ciyê wan erkan, pirsa jiyana rojane serî hilde.

Bi vî awayî rêjîma Komara Îslamî hewl dide mamostayên ku ji siyaset û pilanên wê re nabin emraz, bê maf û bê îrade bike heya derfeta hindê tunebin ku xwendevanên azad û bi îrade perwerde bikin.

Lê komara Îslamî, piştî 35 sal hewldan hêla nekariye îradeya mamostayan bi yekcarî sînordar bike û wan bike emrazê pêşxistina siyaseta xwe.

Kesayetiyên xwedî îrade û şiyar yên weke mamosta Ferzad Kemanger, bi îradeya xwe karîn xwendingehê bikin navenda perwerdeya mirovatiyê û kela serhildan li hember zordariya Komara Îslamî.

Gellek mamostayên din li Kurdistan û li Îranê, li hember felsefeya reşparêze Komara Îslamî li berxwe didin, û ji têkoşîna li hember sîstemê re pêşengiyê dikin. Ji bo wan mamostayan, roja mamosta mana û naverokek cuda ji ya rêjîmê heye.

Ew di roja ku rêjîmê ji bo wan diyarî kirî de, tu rêûresman nagirin, lê ji îrade, maf, daxwazî û erk û pêgeha xwe ya perwerdeyî û civakî xwedî derdikevin. Ji bo wan, roja mamostayan ew roj e dema ku îradeya wan ya azad bi ser dîktatorî û kevneparêziyê de bi ser bikeve.



# 500’mîn Salvegera Tifaqa Kurd û Osmaniyan

Şakir Epozdemir



Di dîroka Kurdistanê da yekemîn car e ku 500 sal berê, sala 1514’ê, 28 Mîrên Kurdistanê li Bajarê Amasya bi Siltanê Osmanî Yawuz Sultan Selim ra rûniştin, weke neteweyek û bi yek dengî, tifaqa Kurd û Osmaniyan îmze kirin.

Di dîrokê da yekemîn car bû ku mîrên Kurdistanê xeberên xwe kirin yek, raya wan bû raya giştî, raya neteweyî û bi zanîn û raman û îrada xwe biryar girtin bi Siltanê dewleta Osmanî ra tifaqeke rast li gorî berjewendiya Kurd û Kurdistanê girêdan û birne serî.

Di dîrokê de yekemîn car bû ku ji Suleymaniyê heya Mehabadê, ji Mehabadê heya Meletê, ji Meletê heya Kilîsê û ji Kilîsê heya Cizîrê; Mîrên Kurdan, û serwerên kurdistanê bûne yekbend, yekrêz û yek mist.

Ev bûyera dîrokî, ev bûyera balkêş û serkeftî wisa mezin û manadar e, ku bûyereke dîplomatîk a ji vê qenctir ne ji bo Kurdan, û ne jî ji bo Osmaniyan neqewimî.

Careke din di hemî zemanê Mîran da, heya dawiya dawî, yekên weke Sultan Huseynê Mîrê Amediyê, Siltan melik Xelîlê Eyûbî Mîrê Hesenkêfê, Şeref Xanê duyemîn yê Hikimdarê Bedlîsê, Mîrê Cizîra Botan Şah Elî Beg, Mîrê Herîrê Emîr Bedredîn Beg, Mîrê Gurgila Botan Seyid Ehmed Beg, Mîrên Mukiryan Kurên Emir Sarim Qasim Beg, û Suleyman Nasir Beg, Cemşîd Begê Hikimdarê Paloyê, Lala Qasim Begê Mîrê Gêlê, Emîrê Xaçûkan (Bîngolê) Sultan Ehmed, Mîrê Kilîsê Babê Canpolatê Navdar Emîr Qasim Beg, Pîr Hisên Begê Hikimdarê welatê Dersîmê (Mîrê Çemîşkezekê), Mihemed Elî Begê Mîrê Sasonê, Mîrê Derzin (Zirkan) Mihemed Beg, Sultan Dawûd ê Hikimdarê bajarê Hîzan, Şêr Begê Mîrê Hikûmeta Şêrwan (Kufra) û Ehmed Begê Mîrê Hetaxê (Licê) ê li xaka Kurdistanê ranebûn.

Em dikarin bêjin di dewra Osmaniyan da dewreke weke dewra Siltan Selîm û Qanûnî Siltan Silêmanê kurê wî jî xwedan îrade û biryar ranebûn, di vî halî da pêdiviyeke weke wê demê, Kurd neçarî yekîtiyê nekir.

Gava ku ew pêdivî û pêwîstî di serê sedsala 20’ê da qewimî, û carek din dem û dewran zivirî, Kurd bê mîr û wezîr, û serwer û sermiyan bûn. Hêviya Kurdan ji împeratoriya Osmaniyan hêj qut nebibû.

Şêx Ebdilselam Barzanî ew pêwîstî û fersenda dîrokî dît, û baş tê gihîşt lê, dijmin nehişt ku tevgera wî ya neteweyî ciyê xwe bigire. Ya Şêx Ebdilselam Barzanî, Xalid Begê Cibrî, Elîşêr Begê Qoçgirî, Şêx Mehmûd Berzencî û wan serwerên din, ne weka tevgera Mîran ya sala 1513-14’ê bû.

Di sala 1514’an da mecbûriyetek, îrade û daxaza neteweyekê, dîplomasiyeke xurt, otorîteyên xwedan qerar û raman, ji van hemiyan giringtir, piştgiriya dewleteke weke Dewleta Osmanî ya wê demê hêzdar û navdar rê li ber mîrekên Kurd vekiribû. Di serda jî zordarî û zordestiya dewleta Sefewî ya Şahsimayîl ku hemû bajarên Kurdistanê zeft kiribû, rolên xwe yên dîrokî û erênî di vê mijarê da leyîztin

Tişteke din a gellek giring ew e ku hema hema hemû Statûyên Kurdistanê ji sala 1460’an heya giha vê sala Tifaqa Kurd û Osmaniyan (1514) di şerê berxwedan û rizgariya statûyên xwe û welatên xwe da şerên rizgariyê kirine, û di nava wan da şervan û lîderên ku me navên wan anî, derketine.

Hekî em bizanin ka di van 50 salan da Kurdan ji bona azadiya xwe şer û berxwedanên çiqas giran borandine, û bi îrade û biryara xwe birine serî, û em baş bizanin ka Kurdan welatên xwe ji bindestê hêzên dijwar û xwînrêj, dewleta Aqqoyîniyan bi çi rengî rizgar kirine, emê bizanin ku neteweya kurd her dem û her zaman dikarin rizgariya welatê xwe bi dest bixin û armancên xwe yên rewa bibine serî.




Ev mesele gellek tê dirêjkirin. Pêdiviyek hebû ku sala îsal hemî akademisyen û rewşenbîrên Kurdan li ser vê babetê kûr bifikirîban, û pişta xwe nedaban bûyereke waha giring û dîrokî.

Pêwîstiyeke gellek giring pê hebû ku Zankoyên Kurdistana Azad û hemî rêxistinên zanyariyên Kurd ji serê sala 2014’an ve, pêçiyên xwe danîna ser vê mijara dîrokî û hemû dinyayê pê bihesandan ku 500 sal berê neteweya Kurd bi îrada xwe ya neteweyî kariye çi bike, û projeyên gellek giring bixe jiyanê.

Pêdivîyeke giring ji bona Hikûmeta Federal a Kurdistanê ew e ku xwe li dîroka xwe bike xwedî, û prestîja xwe li hemî Kurdistanê û li dinyayê qaîm bike, û vê fersendê nerevîne.

Pêwîst e ku di vê salê da li Hewlêr û Suleymaniyê, li Diyarbekir û Wanê, li Stenbol û Enqerê konferans û semînar bêne amadekirin, û bi kovar û rojnaman, û radyo û Televizyonan bêne piştgirîkirin.

Hewce ye ku pisporên Kurd, ew pisporên ku aqilên wan ne ji kîsî sosyolêgên ecnebî, li ser vê têkiliya Kurd û Osmaniyan û dewama wan ku jêra dibêjin Dewleta Tirkan, bi rastî bînine ziman, û Tirk û Kurdan bi vê Tifaqa Dîrokî serwext bikin ku herkes babê xwe binase.

Pêşniyara min ê 77 salî eve ku; Hikûmeta Kurdistanê, Zankoyên Kurdistanê, akademîsyen û hemû alî û rêxistinên kulturî yên Başûr, hewil bidin ku vê fersendê nerevînin.

Em Kurdên Bakûr ji xebateke waha ra amade ne, û me akademisyenên ku li ser vê mijarê têra xwe lêkolîn kirine hen e.

# Mihemed Salih Qadirî endamê Komîteya Nawendî ya PDKÎ: "Dewleta Turk naxwaze bi fermî PKK weke mixateb û aliyê sereke yê pirsgirêka Kurd qebûl bike".

**Di Turkiye de guhertin bilez çê dibin, û niha jî guherîna navê BDP û hişdariya Ocelan di vê derheqê de, ku hekî dewlet pêvajoyê bixitimîne, emê xwebirêveberiyê ragehînin, di nav Kurdan de pirseke giring û germ ya rojevê ye, lewra wekî Rojnameya Agirî me bi hewce zanî ku di vê derheqê de, hevpeyvînekê di gel rêzdar Mihemed Salih Qadirî endamê Komîteya Nawendî ya PDKÎ pêk bînin, ku eva jêr deqa vê hevpeyvînê ye:**

**Pirs: Gelo bi raya we guherîna navê BDP bi çi armancî bûye, û dikare çi bandoreke erênî li ser xebata wan û çalakiyên wan di Kurdistana bakûr de bike?**

**Bersiv:** Ez bawer im guhertina navên partiyên siyasî di Turkiyê de, cude ji astengên girêdayî bi zagonên Dadgeha Bilind a Turkiyê, pirsgirika sereke ya partî û saziyên girêdayî bi PKK nîne, belkû ya rast zelalnebûna stratejiya siyasî ya BDP bi xwe ye.

Mixabin bi sedema vê yekê ku ev partiye xwedî serxwebûnek siyasî û herwiha pêkhateya rêkxistinî nebûye, lewma herdem egera derkirina biryaran li derveyî îradeya rêveberên wê, li ser stratejî û pêkhateya vê Partiyê, ji aliyê PKK'ê ve hebûye.

Ku wusan e em dibînin ku bi hêceta cîbicîkirina qonaxa sêhemîn ya pêvajoya aştiyê ji aliyê birêz Ebdullah Ocelan ve, ev biryara han hatiye dayîn ku BDP were hilweşandin û endam û rêveberên wê tevlî Partiya nû avabûyî ya bi navê HDP (Partiya Demokrat a Gelan) bibin, partiyek ku çep û skolarên Tirk cihê xwe di nav de girtine.



Ev partiya han jî qirar e ji rêya sê çiqên xwe ve ku bo her yek ji: Kurd, Elewî û çepên Tirk re, hatiye avakirin, xebata xwe bidomîne. Tê gotin ku merema Ocelan ji derkirina biryarek han, cîbicîkirina qonaxa sêhemîn ya aştiyê ye ku xwe ji guhertina xebata çekarî ya çiya û vemalîna çekan û destpêkirina xebata legal û siyasî di Turkiyê de ye dibîne. Serbarê vê yekê ku heta niha ji aliyê dewleta Turkiyê ve çi biryarek zelal bo cîbicîkirina vê qonaxê nehatiye dayîn, û renge cîbicîkirina qonaxek han, hewcehî bi pejirandina hinek madeyên yasayî ji aliyê AKP ve be.

**Pirs: Gelo bi raya we pêvajoya aştiyê çawa diçe pêş?**

**Bersiv:** Wek em dizanin pêvajoya aştiyê, heta niha neketiye çarçoveyeke yasayî de ku pênaseya gotûbêjek fermî di navbera PKK û dewleta Turk de bike, û aliyek sêyemîn, çavdêriya pêvajoya çareseriya pirsa Kurd bike.

Heta niha tenê ji aliyê dezgeha MÎT ya Turkiyê ve, bi serokê bendkirî yê PKK ve hevdîtinên nepenî hebûne. Ev kare bi wateya vê wateyê tê ku heta niha dewleta Turk naxwaze bi fermî PKK weke mixateb û aliyê sereke yê pirsgirika Kurd qebûl bike, yan jî bo çareseriya pirsa Kurd, semîmiyetek siyasî ji xwe ve nîşan bidet.

Serbarê wan arîşeyan eva ku xûya ye ewe ku, ne PKK û ne jî dewleta Turk naxwazin şer dest pê bike û her yek ji wan baş dizanin ku raya giştî ji şer bêzar in. Ku wusan e serbarê hêdî berbipêşveçûna pêvajoyê, lê her du alî naxwazin ew pêvajoye were xitimandin.

# Nerîna Lîderan



Barzanî:

"Di 2'ê Gulanê de, emê bi bê razîbûna deshilata nawendî, dest bi firotina petrol xwe bikin".



Ocelan:

" Hekî Enqere tu pêngavan hilnegire, em neçar in ku xwebirêvebiriyê ragehînin".



Can Kirî:

"Hekî Îsraîl bi Felestînê re, diyalog û aştiyê pêk neyne, renge bibe sîstemeke wekî apartaydê".



Bahçelî:

"Erdoxan bûye milîtanê veşartî yê PKK'ê".

**Pirs: Ocelan ragehandiye ku hekî pêvajo hêdî here pêş, eva ew qebûl nakin, û wê xwebirêveberiyê ragehînin, hûn vê axavtin û gefxwarinê çawa dinirxînin?**

**Bersiv:** Di rastî de eva ku rêzdar Ocelan basa Xweseriya Demokratîk dike, di baştirîn halet de, dikare ji hêla îdarî û xizmetkarî ve bo hinek ji herêmên Bakûrê Kurdistanê, li ser bingeha kanton yan wîlayetan xwe îfade bike.

Lê her kes dizane ku pirsgirika sereke ya gelê Kurd li Bakûrê Kurdistanê de beriya her tiştî, pirsek siyasî û netewî ye. Pirsgirikek ku gelê Kurd ji sedsalên derbazbûyî de li hember sîstema mehandina sîstematîk ya kemalîzma Turkiyê de xebatê bo dike.

Di rewşek welo de, altirnatîva herî baş ne Xweseriya Demokratîk e, belkû pêdagirî ye li ser daxwazên siyasî û netewî yên gelê Kurd ku te'bîrê ji nasnameya Kurd weke netewe û Kurdistan weke Herêmek serbixwe bike. Nek xweseriyek nezelal û bê naverok û bê hêmayek netewî û naverokek siyasî.

**Pirs: Gelo hûn rola PKK di vê qonaxa hestiyar de, ku pêbendî agirbesê bûye, çawa dinirxînin, mirov dikare bêje wan gavên pratîk jî avêtin, lê bersivên bi partîk ji aliyê dewletê ve wernegirtin?**

**Bersiv:** Eşkere ye ku rola PKK çi weke aliyek ji pêvajoya aştiyê û çi weke aliyê şer, gellek girîng û hestyar e.



**"PKK baş dizane ku ew deskevtên ku di pêvajoya aştiyê de çi di qada navxwe û çi di qada navnetewî de bi dest xistiye, gellek ji wan bedelên şer zêdetir in".**

ji ber ku PKK baş dizane ku ew deskevtên ku di pêvajoya aştiyê de çi di qada navxwe û çi di qada navnetewî de bi dest xistiye, gellek ji wan bedelên şer zêdetir in, û serbarê vê jî, niha birêz Ocelan di rewşek awarte da, di girtîgehê de ye.

Lewma naxwazin ew pêvajoyê bixitime û şer dest pê bike, tenê di haletê berevaniyê de li hember êrîşên leşkerî yên Turk de nebe. Di hemen demê de, herçend heta niha dewleta Turkan çi biryarek cidî û zelal bo çareseriya pirsa Kurd nepejirandiye, lê tê çavnihêrkirin ku piştî helbijartina serokomariyê, bi ev sîstema nû ya xwe ve, egera pejirandina hinek madeyên destûrî heye weke paketa çareseriyê, daku ev pêvajoye bi rengek yasayî ku dewleta Turk bixwaze were çareserkirin.

Di rewşek welo de herçend PKK deskevtek baş ya siyasî ji dewletê wernegirtibe jî, lê çi berjewendiyeke xwe di berdewamiya şer de nabîne. Lewra herçend ku çi zelaliyek siyasî ji aliyê Turkan ve bibînin jî, dîsan jî li gorî îmkan wê hewla xwe bidin ku ev pêvajoya berdewam bibe.

# Amerîka: Nabe Kurdistan bêyî Bexdayê neftê bifroşe



**Washington (Rûdaw) – Wezareta Derve ya Amerîka, li ser hinartina nefta Herêma Kurdistanê bo derveyî Kurdistanê ragihand, ew qebûl nakin nefta ti beşekî Iraqê "bêyî rizamendiya Bexdayê" bo derve were hinartin.**

Li gorî daxuyanî û dîrektîfên Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî û helwesta Wezareta Enerjiyê ya Tirkiyê, nefta Herêma Kurdistanê diviya ji duh ve (2ê Gulanê) derbasî bazarên cîhanê bibe lê heta niha ev yek nayê zanîn, di demekî de ku Bexda ji vê yekê razî nîne.

Li hember vê yekê, Berdevka Wezareta Derve ya Amerîka Marie Half, ragihand ku ew qebûl nakin nefta ti beşekî ji Iraqê bêyî rizamendiya hikûmeta navendî ya Iraqê were hinartin.

Berdevkekî din ê Wezareta Derve ya Amerîka bi navê Michael Lavalî, bi rêya e-mailê daxuyanî da Rûdawê û ji Herêma Kurdistanê û Bexdayê xwest, nakokiyên xwe li ser hinartina neftê çareser bikin da ku welatiyên her du aliyan bi awayekî wekhev sûdê ji firotina neftê bibin.

Michael Lavalî, her wiha anî ziman ku helwesta Amerîka li ser mesela hinartina petrola Iraqê nehatiye guhertin û wiha got: "Amerîka piştgiriya hinartina petrola ti beşekî Iraqê bêyî rizamendiya Bexdayê nake."

Wî rayedarê Amerîkî her wiha got ku lê ew pêşwaziya biryara Herêma Kurdistanê ya şandina rojane 100 hezar bermîl petrol bi rêya şîrketa Iraqî ya SOMO dikin.

Berdevkê Wezareta Derve ya Amerîka Lavalî, amaje bi rêkeftina vê dawiyê ya navbera Herêma Kurdistanê û Îranê de jî kir û got, hişyariyê me yên li ser îmzekirina rêkeftinên petrolê bi Îranê re mîna berê didomin ji ber ku Îranê di bin dorpêça aborî ya rojava de ye û kîjan welat vê yekê binpê bike dê were cezakirin.

Ji aliyekî din, malpera bi navê "Iraq Oil Report" ragihand, Herêma Kurdistanê ji roja 27ê Nîsana îsal ve rojane 100 hezar bermîl petrol dişîne Tirkiyê bêyî ku haya Bexdayê jê hebe.



# Ew hilbijartina ku bi bê leşkerên Amerîkayî birêve çû

Şehab Xalidî



Roja 30'ê Nîsanê 20 milyon û 437 hezar û 712 kesên ku mafê dengdanê hebûn, li jêr çavdêriya çavdêrên biyanî û Îraqê, û bo yekemîn car piştî sala 2003'an bi bê amadeyiya leşkerên Amerîkayî di Îraqê de, rû li sindûqên dengdanê kirin, da ku 328 nûneran, bişînin parlemênta Îraqê.

Hejmara berbijaran bo parlemênta Îraqê, 9 hezar û 32 kes bûn ku ji wan, 2 hzar û 607 kes jin bûn. Hevdem di gel hilbijartinên parlemênta Îraqê, hilbijartina Civata Parêzgehan jî birêve çû.

Bê guman bo gelê Kurd, ku di vê qonaxa hestiyar de, li jêr zext û givaşa Bexdayê, bi taybetî li ser pirsa şandina petrola Kurdstanê bo derveyî Îraqê de ye, beşdarîkirina berçav ya wan di hilbijartinê de,nîşaneya hest bi berpirsayetîkirina wan di hemberî pirsên çarenûssaz de bû.

Jiber ku vê gavê hewce ye ku Kurd li ser pisên stratejîk û neteweyî, wekî madeya 140, û çareserkirina pirsa şandina petrola herêma Kurdistanê bo derveyî welat, yekdeng û yek helwest bin.

Yek helwestiya li ser pirsên herî giring ên stratejîk û neteweyî, di vê qonaxa xebata wan ya siyasî û parlemanî de, şêweyek ji xebatê û dirêjiya xebata wan ya bi salan ji bo azadî, demokrasî û mafê neteweyî ye.




Lê li ser asta Îraqê bi giştî, bi taybetî zêdetir di dema hilbijartinê û hewlên bo pêkanîna deshilateke nû di Îraqê de, nîgeraniyek hebûye ku ew jî astê destêwerana Komara Îslamiya Îranê di nava karûbarên Îraqê de ye. Bitaybetî niha ku hêzên Amerîkayî di Îraqê de nemane, û kirîzek bi navê kirîza Sûriyê heye.

Ji mînakên berçav ên destêwerdanên Îranê di karûbarên Îraqê de, hewildana Îranê bona pêkhatina hevalbendiyeke bihêz ya Şîe piştî sala 2003'an, û herwisa zextxistina li ser partiyên nizîk bi xwe û bi taybetî cemaeta Sedr di parlemênta Îraqê de, da ku dest ji dijayetî û hewil dan bona li ser kar avêtina Malikî dest hilgirin. Herwisa pêkanîna hevalbeniyekê ji aliyê Malikî ve di gel rêkxirawa Bedr, di hilbijartinên herêmî ên sala 2013'an de, ku ji cemaeta Ebdulhekîm veqetiyabû, û ji aliyê Îranê ve dihate piştevanîkirin, mînakek din ya nifûza Îranê di Îraqê de ye.

Ku wisa bû Komara Îslamiya Îranê, yek ji wan deshilatên dijî demokrasiyê ye, ku hewil dide bi piştevaniya madî û me'newî, û bi mifahwergirtina ji dostatiya xwe ya dîrokî û siyasî di gel hinek ji partiyên bi bandor di qada siyasî ya Îraqê de, di rastaya qazanc û berjewendiyên xwe yên siyasî bi kar bîne.

Lê em hêvîxwaz in ku di parlemênta vê carê ya Îraqê de, ew qas parlemantarên cesûr û nîştimanperwer hebin ku dilê wan bo serbixweyiya welatê wan, û ji bo demokrasiya welatê wan bişewite, ku pêşîgirtina ji destêwerdanên Îranê di nava karûbarên welatê wan de, yek ji karên herî giring ên wan be.

Ji aliyekî din ve, heya wê demê ku hikûmeta nû pêk nehê, îmkana xiraptirbûna rewşa ewlehiyê, û destêwerdana neyarên azadî û demokrasiyê di nav karûbarên Îraqê de zêdetir e, lewra berjewendiya tewahiya Îraqiyan di bilez pêkanîna hikûmetê û zêdetir karkirina bo cihgirkirina ewlehiyê di vî welatî de ye.

Jiber ku ji bilî Îranê gellek deste û girûpên reng bi reng ên terorîstî çê bûne, ku her aliyek dixwaze çarenûsa xelkê belengaz ê Îraqê, ber bi asoyeke tarî û nediyar ve bibe.

Lê bi giştî beşdariya berçav ya xelkê Îraqê di vê hilbiartinê de, serbarê çendîn karên terorîstî û teqînên ku pêk hatin, nîşaneya têhnêtiya xelkê vî welatî bo azadî, demokrasî û ewlehî û xizmetgozariyê ye.

Lewra wan nûnerên xwe bo çar salan hilbijartin û ji niha şûnde ewê di benda kar û xebata nûnerên xwe û deshilata nû ya demokratîk bin.

Hekî ew deshilat bikare çavnihêriyên xelkê xwe bi cih bîne, bê guman ew yek wê ne tenê bi dilê Îraqiyan, belkû bi dilê hemû azadîxwazîn, herêm û cîhanê jî be, lê berevajiyê vê yekê dikare rê ji pêşiya jiyaneke pirr dijwar bo Îraqiyan veke, ku ew yek, ne di berjewendiya Îraqê, û ne jî di berjewendiya herêmê de dibe, û deshilatdarên Îraqê, wê li hemberî, xelkê xwe û li hemberî dîrokê de, berpirsyar bin.

H: Rehîm Gerguli̇̂






# Ehmed Bîlal: "Dema RDKÎ nûçeya şehîdkirina Dr. Qasimlo bilav kir, çaydanê çayê ji destê xwediyê malê de kete xwar".

Ehmed Bîlal kurê Husên sala 1959(1338)'an li bajarokê "Peswê" a ser bi devera Lacana Pîranşarê hatiye dinê.

Ehmed Bîlal her di despêka zarokatiya xwe de babê xwe ji dest dide, di temenê 7 saliyê de weke tewahiya zarokên din diçe xwendingehê, lê bi sedema nebûna siya bab li ser serê Ehmed û xûşk û birayên wî, û herweha zext û givaşa hejarî û destengiyê, navbirî nikare zêdetir ji 5 salan xwendingeha xwe bidomîne, lewra destan ji xwendinê dikişîne û dest diavêje karê cotkariyê.

Ehmed Bîlal nasiyariya xwe tevî PDKÎ weha tîne ziman: "Bo cara yekemîn min PDKÎ ji rêya mamosta "Îbrahîm Şêxalî" ve ku mamostayê min bû, nas kir. Mamosta Îbrahîm basê Kurdatî û mafê Kurdan dikir û stranên şoreşvanî bo me digotin.

Herweha sala 1980 (1359)'an rojekê min û mamê xwe di nava bîstanê xwe de kar dikir ku Dr. Qasimlo û Hesen Restgar tevî hejmarek pêşmergên din di nava bîstanê me re derbaz dibûn, hatin cem me, û min xwest ku ez hindek Xiyaran ji wan re bişom, lê Dr. Qasimlo rê neda û got ezê bixwe bişom, piştre Dr. Qasimlo xwest ku perê xiyaran bide me, lê me got em pere wernagirin.

Herweha kurmetek min jî bi navê Bazîd Xizir Azer pêşmergê PDKÎ bû û piştre şehîd ket. Evana bûne sedem ku ez PDKÎ baş nas bikim û biryara tevlîbûnê bidim".

Ehmed Bîlal herweha tevlîbûna xwe bi PDKÎ re weha tîne ziman: "Newroza sala 1979 (1358)'an baregehek PDKÎ li gundê Kêlesipiyanê bû û Seyd Resûl Babê Gewre fermandeyê hêza Qendîlê bû, ez çûm û li wî baregehê xwe radestî partiyê kir û bi fermî ez bûm pêşmerge".

Ehmed Bîlal roja her xweş a jiyana xwe weha bas dike: " Roja herî xweş a jiyana min ev e ku, em di lika çar a hêza Qendîl de pêşmerge bûn, rewşa aboriya me pir xirab bû û yarmetiya me têra hewceyî û kêmasiyên me nedikir, şehîd Hemze Bêhnam serlikê me bû, Birayê kak Hemze hatibû seredana kak Hemze bike û "Êvêr Kot"ek Amerîkayî weke diyarî jê re anîbû, Şehîd Hemze li bajarê Qeladize Êvêr Kotê xwe firot û perê wî bi ser pêşmergan de parve kir.

Me ji kak Hemze pirsyar kir ku gelo tu çima diyariyê birayê xwe wusa difiroşî? Got ez çava kotê weha bi bûha bikim ber xwe de, lê tu perê we jî tu nebe? Eva roja herî xweş a jiyana min e ku tu caran jibîr nakim"

Ehmed Bîlal herweha roja herî nexweş a jiyana xwe jî weha tîne zima: "Rojên nexweş di jiyana pêşmergatiya min de pir in, lê em tîmek ji pêşmergên hêza Qendîlê şevê li nêzîk gundê Girdiksipyanê mabûn, min xewn dît ku didanek min ketiye, sibezû dema ez rabûm min ji hevalên xwe re bas kir, şevê em çûn nava gundê Girdiksipiyan û li malekê bûn ku xwediyê malê gellek rêz û hurmet ji me girt, me ça vedixwar û RDKÎ gudarî dikir, wî çaxî RDKÎ nûçeya şehîdketina Dr. Qasimlo belav kir, çaydana çayê ji destê xwediyê malê ket xwar û got êdî PDKÎ piştî nemana Qasimlo namîne, min jî di bersiva wî de got ku jiber ku Dr. Qasimlo em perwerde kirine, PDKÎ wê her bimîne. Eva roja herî nexweş a jiyana min e".



Ehmed Bîlal derheq jiyana xwe ya hevpar dibêje: "Sala 1991 (1370)'an min tevî Amîn Qadirî xelkê bajarokê Seng-eser a ser bi Başûrê Kurdistanê jiyana hevpar ava kir û berhema jiyana me jî 3 keç in".

Ehmed Bîlal rû li xelkê Kurdistanê dike û dibêje: "Kesên ku îxanetê dikin û çeka rejîmê hilgirtine, ez daxwazê li wan dikim ku bi neteweya xwe piştqahîm bin, û cardin vegerin ser rêya rast, jiber ku hûn jî kurên vî ax û xelkî ne, û Komara Îslamî heya roja ku hûn dikarin jê re kar bikin, piştevaniya we dike".

Ehmed Bîlal bi vê hêviyê dawiyê bi gotûbêja xwe tîne: "Tenê hêviyek min heye, ev jî ev e ku vegerim nava xelkê xwe de, û li wir jî xebata xwe bimeşînim, û seredana wan malbatan bikim ku kurên wan di nava refên PDKÎ de canê xwe ji dest dane û şehîd ketine".



# Roja cîhanî ya kedkaran û rewşa xirap ya kedkarên Îranê

Dara Natiq

Civatgeha mirovahiyê di 1'ê meha gulana hemû salekê de, bi birêvebirina çalakiyên curbicur û bi bîranîna vê rojê, rêz ji dîroka pirr ji êş û azara xebat û tekoşîna mafxwazane ya kedkaran digrin û bi taybetî qata kedkar ji bo parastin û bidestxistina mafên rewa ên xwe, bi awayeke ektîvtir ji texên din di qada van çalakiyan de derdikevin.

Bîroke û binavkirina vê rojê wekî roja kedkar vedigere bo yekemîn rêpêvîna nerizayetiya kedkaran di 26'ê Adara 1886'an de ji bo bergirî ji mafên xwe û piştre di 1'ê meha Gulana 1886'an de, bi hezran kedkarên Şîkagoya Amerîkayê bi rêxistina meşên nerazîbûnê li dijî asta xirapa rewşa jiyanê û kêm dahatiya xwe, rijiyane ser şeqaman û di encama pevçûna digel hêzên polîs de bi dehan kedkar hatin kuştin û birîndar bûn.

Piştî sê salan, di duyemîn kongireya Înternasyonala kedkarî de biryar hate dan ku bona bilindragirtina yad û bîranîna goriyên 1'ê Gulanê ew roj wek roja cîhanî ya kedkaran were naskirin.

piştre bi geşekirina nawenda taybet bi mafê kedkaran di piraniya welatên cîhanê de, yasayên kar guhertin bi ser de hat û çêtir bû. Lê mixabin di Îranê de, cuda ji serkut û jinavbirina her terze boçûneke hizrî û siyasî, di biyavê aborî de jî, civak kiriye qada zêdexwaziya rayedarên vê rejîmê, û mirov jî kirine emraza berhevkirina hez û mezinxwaziyên xwe.




Nebûna nawendên serbixwe ku berevankarê mafê kedkaran bin, nebûna yasayeke taybet bi kar li gorî norm û standardên cîhanî, û giraniya tiştan û bêkarî û nebûna garanitiya kar, nebûna bîmeya kar, kêmiya heqdest, hejarî û xirapiya asta jiyana, ew kêş û pirsgirk in ku civaka Îranê bi giştî û bi taybetî qata kedkar pêve dinalînin.

Li gorî rapora rêkxirawên cîhanî ên taybet bi mafê kedkaran, Îran yek ji welatên herî metirsîdar bo kedkaran e. Bi sedema gemaroyên ser Îranê roj bi roj rewaş aborî xiraptir dibe.

Herwisa li gorî rapora rêkxirawa cîhanî her niha 18 milyon kes li jêr hêla hejariyê de dijîn. Rêjeya bêkarî berdewam di zêdebûnê de ye, û ran niha li rêzbenda 18'emîn welatê cîhanê de ye, ku zêdetirîn bêkarî têde heye.

Li gorî serjimêriyan Îran di warê enfilasiyonê de, di nava 221 welatên cîhanê de, di refa çaremîn de cih digre. Di warê derfeta kar de di rêzbenda 152'emîn welatê cîhanê de ye.

nirxa perê Îranê di rêzbenda 3'ê ya perên bi buha ên cîhanê de ye. Di biyavê azadiya aborî de jî, 173'emîn welatê cîhanê ye. Di warê rehetî û çawaniya jiyanê de, xelkê Îranê di refa 150'emîn welatê cîhanê de ye.

Di heyama çend salên borî de, bi dehan karxane hatin daxistin û bi hezaran kedkar hatin bêkar kirin û li ser kar hatin derxistin. Her li gorî serjimêriyên hikûmetî, bi awayekî navincî, rojane şeş kedkar bi sedema bûyerên curbicur canê xwe ji dest didin. Di Kurdistanê de jî tevî zulm û stema neteweyî, xelkê Kurdistan bi giştî û qata kedkar bi taybetî di rewşeke xirap ya aborî de jiyana xwe de diborînin.



Rêjeya bêkarî li bajarên Kurdisanê de çend qat zêde kiriye, tenê li parêzgeha Sine de, li gorî serjimêriyên hikûmetî zêdetir ji 150 hezar kes bêkar e.

Her li gorî nawenda Ajansa Kurdpa, di sala borî de zêdetir ji sed kedkarên Kurd di herêmên Kurdakincî ên Îranê de, bi bûyerên kar canê xwe ji dest dane, nêzîkî 600 kedkarên kurd ji aliyê xwedîkaran ve li ser kar hatine derkirin, û beşek ji wan jî, ji mafê bîme hatine bê parkirin.

Li gorî madeya 29'ê ya yasaya kar ya Îranê her kedkarek ku di rojê de, heşt demjimêran kar dike, hewce ye ku "bîmeya Omr" pê bihê dan, lê beşek berçav ji kedkaran nahêne bîmekirin û nawendên pêwendîdar jî tu lêpirsînekê nakin.

Bi sedema nebûna derfeta Kar, kedkarên Kurd rû li derveyî sînorên welat dikin û bi rewşeke nebaş re berbirû ne, bi awayekî ku tenê di sala borî de, di herêma Kurdistanê zêdetir ji deh kedkarên kurd, bi bûyerên kar canê xwe ji dest dane.

Nebûna yasa û rêsayekê ku mafên kedkaran desteber bike, û ji aliyekî din ve siyasîkirina mafê kedkaran astenga sereke li pêşberî vê qatê di civaka Kurdistanê de ye, ku bi berdewamî ji aliyê dewlet û xwedîkaran ve têne çewsandin.

Em dikrin bêjin ku rewşa pirr kirîz ya Îranê rewşa kedkaran di warê jiyanê de, bi metirsiyan re berbirû kiriye. Şikestxwarina nawendên berhemanîn û rewşa xirab ya aborî û li ser kar derkirina kedkaran û daxistina kargehan û paşxistina heqdestê kedkaran, pêla bêkariya di vî welatî de zêde kiriye.

Ew hemû berhema siyaseta ne zanistî û çewt û pawanxwazî ya komek mirovên bîrteng ên sedsalên navîn e, ku bi zorî xwe bi ser civka me de sepandine.



# Gelo çiqas danê Komara Îslamî û ragehandinê bi hevre dikele?

**Arif Vêlzî**



Ragehandin weke pêpikê çaremîn û tewawkerê demokrasî û hikûmeta xelkî tê hesibandin, bi vê wateyê ku hekî di welatekê de, yasa cihgir be û sê pêpikên parlemênto û hikûmet û dezgeha dadweriyê bi awayek xweser karên xwe encam bidin, lê li ser rêya ragehandinê asteng û berbest bihên danîn, eva demokrasiya han seqet e, û wî çaxî hikûmeta xelkê bi ser xelkê de wateya xwe ji dest dide û diçe jêr pirsyarê.

“Azadiya ragehandin” û “ Pirtûk û mafê nivîskar”, du têgehên ji yek nêzîk in ku di beşek zaf ji welatên cîhanê de, bi merema baştir birêvebirina deshilata siyasî û civakî û bilindkirina asta hoşyariya xelkê, girîngiyek zaf jê re hatiye dayîn û lewra, civaka cîhanî du rojên 23’ê April û 3’ê heyva May weke roja cîhanî a “Azadiya ragehandin” û “ Pirtûk û mafê nivîskar” diyarî kiriye. Lê di civaka Îranê de ev du têgehe ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê ve, ketine nava cêxziek piçûk de, û bi awayek pêşdedarêtî û sîstimatîk rêya birêveçûyîna erkên wan bi tewahî hatiye tengkirin. Gelo çima? Jiber ku deshilata gendel a Komara Îslamî bi başî dizane ku bi tenê ragehandinkar û nivîskar in ku perdê li ser gendeliya siyasî û îdariya hikûmet û deshilatdarên Tehranê hildigirin, û bi eşkerekirin û hişyarkirina raya giştî, xelkê navxwe û cîhana derve jê haydar dikin.

Her di vê pêxemê de ye ku em dibînin ragehandin di Îranê de bi tewahî hatiye dagîrkirin û bûye tirîbûnek bihêz bona pêşvebirina siyaset û ecindayên rejîmê. Bi wateyek din her kes û alî an jî dezgehek ku karê ragehandinî dike, hekî bi başî basa Komara Îslamî bike, eva rê jê re vekirî ye, û heya gellek caran di gellek waran de tê saport û piştevanîkirin jî, lê hekî beravajî ragehandinkarek xweser û xwediyê bîrokeyek cuda ji bîrokeya deshilatdarên Komara Îslamî bû, eva ne tenê nahê saportkirin, belkî rêya karê ragehandinî jî, jê re nahê dayîn, û heya gellek caran jî li jêr navên curbicur ên weke dijatiya tevî Xwedê, û têkdana asayîşa netewî û sîxorî bo welatên din û ...hwd, tevî cezayên tund berbirû dibin.

Dîrok şahidê vê ye û dizane ku bi dirêjahiya temenê Komara Îslamî, her qelemek ku di rasteya siyasetên Komara Îslamî de negeriyabe, û bi zimanê rexnê ve nivîsandibe, eva bi awayek dirindane hatiye bersivdan. Mînaka herî berçav bo vê yekê jî rêjeya herî zor a wan rojnamevan û qelembidestan e ku di vê rêyê de canê xwe ji dest dane û yan jî di girtîgehên Komara Îslamî de hebsî ne, û yan jî karê rojnamevanî û nivîsandinê ji wan re hatine qedexekirin, û yan jî reviyane û axa Îranê bi cih hêlane.

Eşkere ye ku nehêlana azadiyan ji aliyê Komara Îslamî ve bi vê hindê bi dawî nahê, jiber ku tiliyê bo her cihekê dibî, ji cihên din xirabtir e, lê jiber vê ku mijara basa me li ser rojên cîhanî ên “Azadiya Ragehandin” û “Pîrtûk û mafê nivîskar” e, emê zêdetir hewil bidin ku li dor van du têgehan mijara xwe bidomînin.

Rêkevtinnameya cîhanî a piştevanî ji mafê nivîskaran ku sala 1995’an ji aliyê rêxistina (UNSCO) “Yoniskoyê” ve li jêr navê roja cîhanî a pîrtûk û mafê nivîskaran hatiye pejirandin, yek ji wan rêkevtinnameyan e ku ji aliyê Komara Îslamî ve nehatiye vajûkirin û rêjîm bi tu bend û madeyên vê girêdayî û pabend nine. Lewra em dibînin ku bi hemû awayekî û ji rêya fîltêrên curbicur ve, hewlê dide ku rêgir be ji çap û belavbûna her pîrtûk, an bilavokekê ku bi qasê misqalekê bas ji demokrasî û mafê netewî û zimanê daykî û heya gileyiyan ji deshilatê bike.

Bo vî karî jî Wezareta Ferheng û Êrşada Îslamî (Wezareta Çandê), hatiye rasipartin ku bi tîxa xwe a sansorê ku taybet e bi Komara Îslamî, bi keyfa xwe û hindek caran jî bi navê Îslamê, her tiştek ku bêhna rexnê û bîrokeyek cuda ji Komara Îslamî jê bê, sansor bike û di hember de jî, rê ji bona belavbûna wan pirtûk û belavokan xweş bike ku di nava bîrokeya Weliyê Feqîh de hatine helandin û cardin hatine şikil(Bîçim) dan.

Evên ku hatine baskirin û gellek tiştên din ku di vir de cihê baskirina wan nabe, bûne sedema vê yekê ku di rêzbenda cîhanî a azadiya ragehandinê de, ku 180 welatan ji xwe digire û ji aliyê nûçegehanên bê sînor ve tê berhevkirin, Îran her weke berê di pileya 173’an de maye, û yek ji welatên herî xirab ên cîhanê ye ku rêjeya herî zaf a sansorê li xwe digire û herweha girtîgeha herî mezin a rojnamevan û nivîskaran e.

Lewra di dawiyê de em dikarin bêjin ku hêj heya gehiştin bi azadiya ragehandinê û bi giştî demokratîzebûna welat, rêyek dûr û dirêj û pir ji ewraz û nişîv di pêşiya akinciyên Îranê bi hemû netewe û olan de ye, lewra hewce ye ku hemû dest bixin nav deste hev û bihev re hewla guhertina sîstema siyasî di Îranê de bidin, û dawiyê bi deshilata Weliyê Feqîh bînin.

# Gotinên Navdaran



A: Firat Cewerî

Yên ku sozên giran bidin, karên bilez dikin.

**Rousseau**

Ji bo karên ku tu nikarî bikî, ji kesî re sozan mede.

**Washington**

Ez kirina metreyek kar, bi sozdayîna kîlometreyan ve naguherim.

**JamesHowel**

Sûcên herî mezin ne ji bo tiştên pêwîst, lê ji bo Bidestxistina tiştên zêde têne kirin.

**Aristoteles**

Ji berdêla ku wê şerefa min bişkê, ez hezar carî bimirim, çêtir e.

**Addison**

Sir nayê veşartin.

**L.Fontane**

Mêr ji siren xwe bêtir, yên hevalên xwe vedişêrin; jin Jî berevajiya wê dikin, siren xwe baş vedişêrin.

**LaBruyêre**

a. Jimareyên kîso, dîk û jîjoyên jêrîn bibêjin û binivîsin.



b. Jimareyên nan, sêv û zebeşên jêrîn bibêjin û binivîsin.



## SIRÛDA TÎPAN

Em şagirt in, em dixwînin, A, B, C,
Nivîsandin, ew ji me re armanc e.
Tîpên me tev sî û yek in, Ç, D, E,
Xweşî ev e, bi zimanê kurdmanc e.

Ê, F, G, H, hem rehet e, hem şîrîn.
I, Î, J, K, xweş dixwînim bi qîrîn.
L, M, N, O, hê mayîne hinên din.
Gelî kurdan, werin tev de bixwînin.

P, Q, R, S, Ş, T, U, Û, tu meyze
V, W, X, ne, ez şaş nakim yek levze.
Heşt dengdêr in, heçî bêdeng bîst û sê
Riya ronî xwendingeh e, ma Y, Z.

Hisênê Emîn

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1. Xoşka mina xoristan, çil dergoş di destan,
ne ber heye ne bistan.
**Mirîşk û çêlik**

2. Ne li Ademiye, ne li Cinniye, qasidê beyna xelkiye.
**Hudhud**

3. Hespê sorê nav çav belek.
- Hirda wê da di sima gê da, heft mal Ecemek tê da.
**Sting/moz**

4. Teyrek hat, tutkek pat, ne fitre, ne zekat.
Bizna kal e, li ser mal e, ne didoşin, ne difiroşin.
Sed mêr hatin bi rengekî, sitran gotin bi dengekî.
- Mirîşka min çû kepire, zîrça xwe bû şekire.
**Mêşa hingiv**

5. Ga dakir, dûv jêkir.
**Cobir**

6. Reşe wekî qîrr, sipî ye wekî şîr, tîje wekî tîr.
**Sîxurr**

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi rêya E-maila Agiri2003@gmail.com ji me re bişînin.**

AGIRÎ

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Tel: (+)9647503640792



# Kesên ku Kolostrola wan heye, zaf sêvan bixon

**Li gorî wan gotinan ku di zû de hatiye gotin, û dêjin "Her roj sêvekê bixo, û tu demekê nojdar nebîne", kesên ku temenê wan 50 sal e, dikarin her roj sêvekê bixon û ji piraniya nexweşiyan dûr kevin.**

Piştî lêkolîneke zanistî ku li Zankoya "Oksford" a Birîtaniyayê hate encamdan, gihîştine vê encamê ku ev kesên her roj sêvekê bixon, ew xwe ji kirîza dil diparêzin, û herwusa qasa Kolostirola wan jî kêm dibe, û xwe ji pirr nexweşiyan dûr dikin.

# Bajarek ji xwê hatiye çêkirin

**Bajarek ciwan û bêmînak li nava kangehek xwê li Pakistanê hatiye çêkirin, ku dîroka wê vedigere bo hezar sal beriya niha, û her sal bi hezaran gerîde seredana wî bajarî dikin.**

Li gorî nûçegehaniyan: Kangehek xwê bi navê "Kîhora" li welatê Pakistanê heye, ku duyemîn kangehên mezin ên xwê di cîhanê de ye, û dîrokek kevnar heye, û vedigere bo 1000 sal beriya niha.

Di nava kangehê de, Navenda postê, Hotêl, Rawestgehên şemendefer, û Migeftek mezin hene ku bi kevirên xwê hatine çêkirin. Herwisa çend cogehên ava şor, di nava bajarê da diherikin, û xelk jî bi merema çareseriyên nexweşiyan di nava ava şor de dirûnên.
Li gor çavkaniyên dîrokî dema ku Eskenderê Meqdonî êrîş kiriye ser welatê Hindustanê, kangeha xwê dîtiye.



# Deh rêyên tirsnak ên cîhanê



1-Rêya bakûrê Yenga , Polonya

2-Rêya tonela Golyang, Çîn

3-Rêya Halsêma, Fîlîpîn

4-Rêya Taroko Corc, Taywan

5-Rêya devera Yakûstik, Rosiya

6-Rêya Trolstîgin, Norwêj

7-Rêya navbera Kabol û Celalabad, Efxanistan

8-Rêya Stêlviyo, Îtaliya

9-Rêya Zocî, Hindustan

10-Rêya Mêdoz, Pakistan

